

# BUROYA KURDÎ
## ya Pêwendî û Agahdariyê

**Bultena agahdariyê N° 145 - Gulan 2017**
Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 – 047 897 882
www.kurdishbureau.bekurdishbureau@scarlet. **www.facebook.com/bureaukurde**
http://en.calameo.com/accounts/3601834

# ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ
***NÎSAN 2017***

## KONFÊRANS





***23. 04. : Entêgrasyon, ezmûnên kesên ji civata kurdî***

**Jona Mustafa** û **Benedikte Von Achen**, du xwendekarên zanînên mirovî li Zanîngeha Azad a Bruksêlê (V.U.B.), konfêransek di çarçeveya staja xwe li bal Buroya Kurdî de kir. Di destpêkê de, wan pêşgotineke kurt li ser koçbûna kurdî li Beljîka kir. Meriv dikare wê di 3 gehînekan (merhele) de dabeş bike :

**1. *Destpêka sedsala 20mîn*** : ronakbîr û ramyar (siyasî).

**2. *Salên 1960*** : Karkerên koçber, bi taybetî ji Kurdistana Tirkiyê.

**3. *Piştî salên 70*** : Pêleke penaberên raymyariyî (siyasî).

Piştre, wan pirs ji beşdaran, li ser ezmûnên (tecrube) wan di pêvajoya entêgrasyona xwe de, bi taybetî li ser nasnameya (identité) xwe, pirsîn.

**BEŞDARBÛNA ÇALAKIYÊN RÊXISTINÊN DIN**

***20.04. : Seredana Parlementa Fêdêral a Beljîkî***
**Fêdêrasyona Internationaal Comité, Beweging.net** û **Femma** seredenake rêberî (tevî rêberekê "guide"), ya Parlementa Fêdêral a Beljîkî pêk anî. Rêbereke jin em li parlement (chamber) û senatê (sénat) gerandin. Li Sênatê, pirsporek bi hûrî rêzayên (ma'na) beşdarbûn

(participation) û dêmokrasiyê ravekirin. Piştre, xwarineke sivik "lunch" li eywana dîrokî ya bedew ya sênatê ji me re hat pêşkêş kirin.

***26.04. : Seredana Parlementa Ewropî***
**Heman rêxistinên jorîn** seredaneke Parlementa Ewropî jî pêk anî. Li wê derê jî, rêberek em li avahiya wê ya gelek mezzin û bedew, ku li taxa ewropî, li nêzîkî Kommisyona Ewropî û Encumena "Conseil" Ewropî ye, gerandin. Piştre "lunch"ek hat pêşkêş kirin.

***27.04. : Civîna giştî ya Internationaal Comité-Bruksêl***
Ev civîneke giştî ya destûrî bû. Awayê hilbijartin û karkirina encumena birêvebir ( heyeta idarî) hat şirove kirin. Piştre, encumeneke nuh hat hilbijartin.

***28.04 : Cêjna taxî li şaredariya Anderlecht***
Rêxistina **Lokale Helden** (Mêrxasên Taxî) cêjneke salane ya taxî li Meydana Résistance (Liberxwedan), li şaredariya Anderlechtê, pêk anî. Gelek cuhan li meydanê dîlan kir û lîzt.

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

## KURDISTANA TIRKIYÊ

### DÛMAHÎKA ŞERRÊ LEŞKERÊ TIRKÎ Û PKKê

***<u>Şirnex (Şırnak)</u>***
Tevgereke leşkerî li dijî PKKê li çiyayê Gabarê hat kirin. Mînek teqiya. 3 serbaz (esker) hatin kuştin û 5 birîndar bûn. Ev tevger hîn dajo (dewam dike).

Qedexekirina hatûçûnê li Şirnex û 3 bajarokên wê, ango Silopî, Hezex û Cizîr, hat rakirin. Lê rûniştevan ji têkçûna xaniyên xwe û hebûna rewşa awarte (ististnaî) "OHAL" gazin dikin.

***Di 21 Nîsan de***, pevçûn di navbera leşkerê tirkî û PKKê de li bajarokê Qilebanê bû. 2 serbaz hatin kuştin û 2 birîndar bun. Leşker hebûna xwe li vê navçeyê bêtir kir û tevger dajon.
*<u>(rudaw.net, 04, 11, 21.04.2017)</u>*

***<u>Çewlik (Bingöl)</u>***
Parêzgariya (wilayet) Çewlikê qedexekirina hatûçûnê li 7 gund û 8 taxên bajarokê Darahênê, ji 04 Nîsan 2017, demjimêr (saet) 23 de, daxuyand (îlan kir). Ev yek, ji bo destpêkirina tevgerekê li dijî PKKê.
*<u>(rudaw.net, 05.04.2017)</u>*

***<u>Amed (Diyarbakır)</u>***
***Di 11 Nîsan 2017 de***, mînek li ber birvêbiriya ewlehiya (emniyyet) bajar teqiya. 3 kes hatin kuştin û 12 birîndar bûn. 5 gûmanbar (kesên bi şubhe) hatin ragirtin. HPG (Hêzên Parastina Gel, ku girêdayî PKKê ne) xwedî li vê êrîşê derketin.

Piştî vê yekê, tevgerek li dijî endamên her du partiyên kurdî, HDP û DBP, dest pê kir. Polîs 78 kes, li malên wan, ragirtin.

***Di 22 Nîsan de***, êvarê, pevçûn di navbera PKK û leşkerê tirkî de li Qulpê bûn. Serbazek hat kuştin û 3 jî birîndar bûn. Tevgera leşkerî, bi piştgiriya hêlîkoptêr û firokeyên şerr, dajo.
*<u>(rudaw.net, 12 û 23.04.2017)</u>*

***<u>Wan (Van)</u>***
***Di 14 Nîsan de***, dema ku li bajarokê Şaxê li bombeyan lêgerîn dihat kirin, bombeyek teqiya. Serbazek û parêzvanekî gund (Kurdên ku bi leşkerê tirkî re, li dijî PKKê, kar dikin) hatin kuştin. Tevgereke leşkerî tê de hat dest pê kirin.

***Di 16 Nîsan de***, karwaneke serokê şaxa navçeya Bêgirê, ya partiya tirkî ya desthilatê "AKP", hat êrîş kirin. Kesek hat kuştin û yek jî birîndar bû. Tevgereke polîsî dest pê kir. Ev karwan bi hinceta (munasebet) rêfêranduma li ser pergala (système) serokatiyê li Tirkiyê li wê derê bû.
*<u>(Rudaw.net, 14 û 16.04.2017)</u>*

***<u>Mêrdîn (Mardin)</u>***
***Di 19 Nîsan de***, parêzgariya Mêrdînê qexekirina hatûçûnê li 7 taxên bajarokên Mîdyat û Kerboranê, ji sedema şerrê li dijî PKKê, ku ewê li wê derê dest pê bikira, daxuyand.

***<u>Kurdistana Iraqê</u>***
***Di 21 û 22 Nîsan de***, firokeyên tirkî sînorê navçeya Amedî û çiyayê Metînan, li Kurdistana Iraqê, bombe kirin. Jineke sîvîl birîndar bû.

***Di 23 Nîsan de***, serê sibê, firokeyên tirkî sînorên bajarokên Wertê, yê navçeya Rewandûzê, û Sengerosê, yê ku girêdayî Ranya ye, bombe kirin. Tu qurban ne bû.
*<u>(rudaw.net, 22 û 23.04.2017)</u>*

***Erzurum***
Parêzgarê Erzurûmê daxuyand ku dema ku hêzên ewlehiyê li mînan, li bajarokê Olîlî, yê girêdayî Erzurumê, digerriyan, şerrek di navbera PKKê û leşkerê tirkî de bû. 2 endamên ewlehiyê birîndar bun. 2 hêlîkoptêr hatin şandin wê derê.
*(rudaw.net, 27.04.2017)*

***Dersîm (Tunceli)***
Pevçûn di navbera leşkerê tirkî û PKKê de li bajarokê Çemişgezekê, yê girêdayî Dersîmê, bû. 9 PKK hatin kuştin û 2 birîndar bûn. Tevger dajo. Li gora rojnameyên tirkî, 8 PKK xwe radestî (teslîm) hêzên ewlehiyê yên tirkî kir.
*(Rudaw.net, 27.04.2017)*

***Çiyayên Dersîm, Wan û Şirnexê***
Tevgera leşkerê tirkî li çiyayên Dersîm, Şirnex û Wanê dajo. Li geliyê Aliboğazê, yê çiyayê Dersîmê, 1 PKK hat kuştin û 4 hatin ragirtin. Li bajarokê Çataxê, yê girêdayî Wanê, 3 PKK hatin kuştin. Li Şirnexê, tevgerek bi alîkariya firokeyên tirkî hat kirin.

***Di 30 Nîsan de***, şerrek di navbera leşkerê tirkî û PKKê de, li çiyayê Kato, li nêzîkî bajarokê Elkê, bû. Serbazek û parêzvanekî gund birîndar bûn.

Parêzgarê bajarê Semsûrê daxuyand ku piştî pevçûnan, 8 PKK hatin kuştin. Û wî got jî ku gelek ciyên çiyayê taybetî ne û tê de hatûçûn heta 13 Gulanê qedexe ye.
*(rudaw.net, 29 û 30.04.2017)*

**PARLEMENTEREKE KURD TÊ RAGIRTIN**




Dilan Taşdemir, parlementera partiya kurdî HDP (Partiya Dêmokrasiya Gelan), a navçeya Agirî, li Mûşê, hat bin çav kirin. Ew ji bo rêfêranduma li ser serokatiyê li Tirkiyê çû bû wê derê. Berê jî, di 20 Adar 2017 de, ew hati bû ragirtin û piştre azad kirin.
*(rudaw.net, 02.04.2017)*

***Trump soz dide Erdoğan ku alîkariya wî bike***
***Di 17 Nîsan de***, serokê amerîkî Donald Trump ji serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan re 45 xulekan (deqqe) têlêfon kir. Wî ew ji bo guherandina destûra tirkî pîroz kir û soz da wî ku ewê li dijî PKKê alîkariya wî bike. Û wî ew ji bo êrîşên wî li Sûriyê jî pîroz kir û got ku divê ku meriv li hemberî êrîşên serokê sûrî Beşşar El-Esed bêdeng nemîne. Û ew li ser hevkarî û hemahengiya xwe di şerrê li dijî Dewleta Islamî de jî peyivîn.

Ewê her du serok  di 24 û 25 Gulan 2017 de li civîna NATOyê, li Bruksêlê, hevdu bibînin.
*(rudaw.net, 18.04.2017)*

**DAWIYA MANGIRTINA 87 GIRTIYAN**
Li Amedê, 20 kes, ku ji wan berpirsiyarên partî û rêxistinên kurdî, HDP, DBP, TJA, KCD, mangirtinek (grêva birçîbûnê) kir. Wan ji dewleta tirkî xwest ku daxwaziyên girtiyên PKKê, ku yek ji wan azadkirina serokê PKKê, Abdullah Öcalan, e, bipejirîne (qebûl bike).

KCK (Komela Civaka Kurdistan, ku girêdayî PKKê ye) bangî mangirtiyan kir ku mangirtina xwe rawestînin û got ku têkoşîna li dijî rejîma tirkî gelek pêş de çûye û ku ji bo vê yekê mangirtin ne pêwîst e.
*(rudaw.net, 11 û 18.04.2017)*

**PARLEMENTEREKE KURD TÊ AZAD KIRIN**

***Di 21 Nîsan 2017 de***, parlementera Amedê, ya partiya HDP, Nursel Aydoğan, derket ber dadgehê û hat azad kirin. Ew ji 4 sal û 8 mehan de li zîndanê bû.

Divê ku meriv zanibe ku hev-serokên vê partiyê, Selahettin Demirtaş û Figen Yüksekdağ, û 12 parlementerên partiya HDP, hîn li zîndanê ne.
*(rudaw.net, 21.04.2017)*

**BEŞDARBÛNA PKKê 90% KÊM BÛYE**
Wezîrê tirk ê hundir, Suleyman Soylu, beşdar bû civînekê li Trabzonê û tê de agahdarî li ser *"têkoşîna li dijî têrrorê"* dan : Di 6 mehan de, li 125 navçeyan, bi tevayî 125.704 tevger hatin kirin. Bi giştî, 14.684 kes hatin bin çav kirin û 2.611 hatin zîndan kirin. Ew bi endambûna PKKê û partiya olî ya Fethullah Gülen, hevrikê (munafis, concurrent) serok Erdoğan, hatin tawanbar kirin.

Wezîr got ku beşdarbûna PKKê 90% kêm bûye. Û wî got jî ku di 2016 de, 915 kes xwe gihandi bû vê partiyê, lê ku di 2017 de, ew bi tenê 95 bûn, û ku nêzîkî 1.000 PKK di şerr de hatine kuştin.

Berpirsiyarên partiyên kurdî HDP û DBP dibêjin ku gelek caran leşker û hêzên ewlehiya tirkî sîvîlan dikujin û wan weka endamên PKKê nîşan didin. Û ew dibêjin jî

ku dewleta tirkî jimara rast a kuştiyên xwe vedişêre û ya PKKê bilind dike, ji bo ku şkestinên leşkerî ji civaka Tirkiyê veşêre.
*(rudaw.net, 08.04.2017)*

**FIROTINÊN KURDISTANÊ JI DERVE RE**
Serokê Hemahengiya Firotinên Derve yên Başûrê Rojhilata Anatolya (GAIB), Abdulkadır Çıkmaz, daxuyankiyeke nivîskî kir û tê de got ku ji destpêka sala 2017 de, vê navçeyê (Kurdistana Tirkiyê) ji 178 welatan re kereste (tişt, hûrûmûr) bi buhayê milyarek, 997 milyon û 144.000 dolaran ji derve re firotine : 54,6% ji welatên Rojhilata Navîn re, 18.4% ji Ewropa re û 10,7% ji Afrîqa re.

Û wî got jî ku welatên sereke yên van firotinan Iraq, Amerîka, Erebistana Suûdî, Îtalya, Îran, Almanya, Brîtanya Mezzin, Israîl û Beljîka ne. Keresteyên ku bêtirîn tên firotin caw (qumaş), hevîr, zeyt, plastîk, cill, tiştên ji hessin ûhw ne.
*(rudaw.net, 02.04.2017)*

**RÊFÊRANDUM LI TIRKIYÊ**
***Di 16 Nîsan 2017 de***, rêfêrandumek li ser pergala (sîstêm) serokatiyê li Tirkiye û Kurdistana Tirkiyê bû. 51.37% got "belê" û 48.63% got "na".

Serokê tirk, Recep Tayyıp Erdoğan, dixwaze ku rêfêrendumeke din jî li ser hukmê îdamê bê kirin. Wezîrê alman ê karên derve, Sigmar Gabriel, got ku eger Tirkiyê vê yekê bi cî bike, ewê xewna wê ku bibe endama Yekîtiya Ewropî kutah bibe (biqede).
*(rudaw.net, 16 û 18.04.2017)*

**1.009 KES LI 72 BAJARAN TÊN RAGIRTIN**
***Di 25 Nîsan de***, bi fermana dozkarê komarê yê Ankarê, tevgereke polîsî li 81 bajaran, li tevayiya Tirkiyê, hat kirin. Wezîrê tirk ê hundir, Süleyman Soylu, daxuyand ku 1.009 kes, li 72 bajaran, hatin ragirtin. Ew bi endambûna Tevgera Fethullah Gülen, oldarê ku li Amerîka, li sirgûnê, ye, ku rikberê (reqîb) serokê nuha yê tirk Recep Tayyıp Erdoğan e, û bi xwexistina nav destgehên dewletê hatine tawanbar kirin. Tevger ji aliyê 8.500 polîsan hat kirin.

***Berteka Parlementa Ewropî***
Serokê Parlementa Ewropî, Antonio Tajani, bertek da (réaction) û got ku ev ragirtin li dijî yasayên Yekîtiya Ewropî ne. Û wî got jî : *"Ez hêvî dikim ku Erdoğan hin helwestên xwe biguherîne, ji bo ku ew nayên pejirandin".* Wî got ku azadiya bîr (fikr) û rojnamevaniyê bingeha dêmokrasiyê ye û bangî Tirkiyê kir ku li ser vê bingehê biçe.

***Berteka Konseya Ewropa***
Parlementa Konseya Ewropa rûniştinek li ser van ragirtinan pêk anî û biryar stend ku Tirkiyê bixwe bin çavdêriyê. 113 ev biryar pejirand, 45 li dijî derketin û 12 bêdeng man. Ev heman (eynî) biryar di 2014 de jî hati bû stendin.

***Berteka Almanya***
Serokwezîra almanî Angela Merkel li ser biryara jorîn a parlementa Konseya Ewropa peyivî û ji Tirkiyê xwest ku hesaba wê bike. Û wê got jî ku divê ku ev babet di 29 Nîsan de, li Lutkeya (civîna bilind) Yekîtiya Ewropî li Bruksêlê, were giftûgo kirin.
*(rudaw.net, 25, 26, 27 û 29.04.2017)*

**PEYKERÊ STRANBÊJ ŞIVAN TÊ RAKIRIN**
Peykerê (heykel) stranbêjê navdar Şivan Perwer di 2009 de li Sêweregê, li Kurdistanê, hati bû danîn. Ew nuha hat rakirin. Bilindbûna wî 2 m. bû.
*(avestakurd.net, 19.04.2017)*

# KURDISTANA IRAQÊ

**DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ**

***ŞINGAL, Navçeya Kurdên Êzdî***

***31 gorên hevrayî***
Heta nuha, 31 gorên hevrayî li Şingalê, navçeya Kurdên ji ola êzdî, ku di Tebax 2014 de ji aliyê Dewleta Islamî hati bû êrîş kirin, hatine dîtin. Rûniştevan dixwazin ku ew werin vekirin û ku navên miriyan bên aşkere kirin.

Muxtarê Şingalê, Mehma Xelîl, got ku di nav gorên hevrayî ku heta nuha hatine dîtin de 1.646 miriyên ku ji aliyê Dewleta Islamî hatine kuştin hene. Û wî got jî ku yaneyên (équipes) lêgerînê karê xwe dajon (dewam dikin) û ku ew pêşbînî (texmîn) dikin ku hîn 50 gorên din ên hevrayî jî hene.
*(rudaw.net, 08 û 10.04.2017)*

***3 keçên piçûk tên kutah kirin***
Berpirsiyarê Buroya Azadkirina Kurdên Êzdî, Huseyn Koro, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku 3 keçên piçûk ên êzdî li Rojavaya Mûsilê ji Dewleta Islamî hatin kutah (xelas) kirin.

Piştî êrîşa Dewleta Islamî li ser Şingalê, ji 6.000 Kurdên êzdî bêtir ji aliyê wê hatin revandin. Heta nuha, 3.000 ji wan hatine rizgar kirin, lê hîn çarenivîsa (qeder) wan ne diyar e (ne xuya ye).
*(rudaw.net, 21.04.2017)*

***Tirkiye çiyayê Şingalê bombe dike***
***Di 25 Nîsan 2017 de***, di demjimêr 2 a serê sibê de, firokeyên tirkî bingehên Yekîneyên Parastina Şingalê (YBŞ), ku nêzîkî PKKê ne, bombe kirin. 6 Pêşmerge (şervanên hukûmeta Kurdistana Iraqê) hatin kuştin û 8 birîndar bûn. Bi ser de jî, 20 şervanên partiya Kurdistana Sûriyê, YPG, ku ew jî nêzîkî PKKê ye, hatin kuştin û 18 birîndar bûn.

Di heman demê de, van firokeyan navçeya sînorî ya Qereçoxê, li Kurdistana Sûriyê, bombe kir (li jêr, Kurdistana Sûriyê, binêre).

Komên 5 partiyên kurdî li parlementa fêdêral, li Bexdadê, bi tundî li dijî vê bombekirinê derketin. Wezareta Pêşmerge bangî PKKê kir ku ji Şingalê derkeve.

4 partiyên Kurdistana Tirkiyê, Hereketa Azadî, PAK, PDK-Bakur û Partiya Sosyalîst a Kurdistanê jî bangî PKKê kir ku ji Şingalê derkeve.

Serokê tirk, Recep Tayyıp Erdoğan, ji ajansa Reuterê re daxuyand ku berê ku ev êrîş werin kirin, wî hişyarî (tenbîh) da bû Amerîka û Rûsya.

Erdoğan û serkwezîrê wî, Binali Yıldırım, sersaxiyê ji serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, re, ji bo mirina 6 pêşmerge û birîndarbûna 8'ên din, xwest. Wan got ku ev yek bi şaşî hati bû kirin.

Leşkerê tirkî 2 cî li Kurdistana Sûriyê jî bombe kirin (li jêr binêre).
*(rudaw.net, 25 û 26.04.2017)*

***Berteka 70 parlementerên ewropî***
70 parlementerên ewropî bi tundî bombekirinên jorîn ên Şingalê ji aliyê Tirkiyê şermezar kirin.
*(rudaw.net, 29.04.2017)*

***36 Êzdî ji DAIŞê tên rizgar kirin***
Birêvebirê karên Êzdiyan li bal wezareta karên olî, Xeyrî Bozanî, daxuyand ku di 28 Nîsan 2017 de, 36 Kurdên êzdî, ku ji wan 26 zarok û 5 jin, ji Dewleta Islamî hatin kutah (xelas) kirin û ku ew li Kurdistanê ji aliyê derûnî (psîkolojîk) û canî (fîzîkî) tên derman kirin. Û wî got jî ku 3.000'ên din hîn jî di nav destên DAIŞê de ne û ku ew tecrube dikin ku wan rizgar bikin. Di Tebax 2014 de, ji 5.000 Kurdên êzdî bêtir ji aliyê DAIŞê hati bûn revandin. Heta nuha, 3.000 ji wan hatine rizgar kirin.
*(rudaw.net, 29.04.2017)*

***NÊZÎKÎ 3 MILYON PENABER***
Nêzîkî 265.000 penaberên 3 perçeyên Kurdistanê li Kurdistana Iraqê dijîn. Bi ser de jî, 1 milyon û 670.000 penaberên din ji Iraq û Sûriyê hatine wê derê. Û wezîrê Koçbûnê yê Iraqê, Derbaz Muhammed (Kurd), ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku ji Hezîran 2014 de, 4 milyon û 350.000 kes li Iraqê bûne penaber û ku heta nuha 2 milyon vegeriyane malên xwe. Ango, bi giştî, hîn 2.935.000 ji wan li Kurdistanê ne û alîkariya navneteweyî kêm e.
*(rudaw.net, 19.04.2017)*

***MÛSIL***

***200 DAIŞ li Tileferê tên kuştin***
Firokeyên hêzên hevbend ên navneteweyî sînorên bajarokê Tileferê, li nêzîkî Mûsilê, bombe kirin. 200 şervanên DAIŞê hatin kuştin û 3 ji wargehên wê (ciyên ku ew xwe tê de vedişêrin) hatin têk dan (xerab kirin). Ev Islamî ji Sûriyê hati bûn û ji bajarokê Beacê, li başûrê rojavaya Teleferê, derbas bû bûn.
*(rudaw.net, 01.04.2017)*

***200 DAIŞ ji Mûsilê reviyan***
200 şervanên din ên Dewleta Islamî ji bajarê Mûsilê reviyan. Şerr li vî bajarî bi awakî xurt dajo (dewam dike).
*(rudaw.net, 07.04.2017)*

***770 serbaz û polîs tên kuştin***
Berpirsiyarê bilind ê leşkerê amerîkî, gênêral Joseph Votel, daxuyand ku ji 17 Teşrîn (novembre) 2016 de, roja destpêkirina tevgera Mûsilê, heta nuha 770 serbaz, polîs û efserên leşkerê iraqî hatine kuştin û 4.600 jî birîndar bûne. Û wî got jî ku nuha şerrekî mezzin li Mûsilê heye.
*(rudaw.net, 02.04.2017)*

***1.000 kes rojane direvin***


Tora Rêxistinên Civaka Sîvîl li Iraqê daxuyand ku rojane 1.000 kes ji rojavaya Mûsilê direvin û li 5 kampan tên bi cî kirin. Û wê got jî ku di 3 rojên dawîn de, 9.000 kes hatin rizgar kirin, lê ku hîn bi hezaran kesên din jî di nav destên Dewleta Islamî de ne û ku ew wan weka mertaeleke zindî bi kar tîne. Hin çavkaniyan li Mûsilê got ku berê çend rojan DAIŞê çend kesên ku bi tecrubekirina revê hati bûn tawanbar kirin hatin bi dar ve kirin (daleqandin).

Buroya Hemahengiya Tevgera Mirovî ya Neteweyên Yekbûyî (OCHA) daxuyand ku di 6 mehên dawîn de, 493.000 kes ji Mûsilê reviyan. Û wê got jî ku li Mûsilê 500.000 sîvîl hene û ku ew di nav destên Dewleta Islamî de ne.
*(rudaw.net, 09 û 18.04.2017)*

***11 DAIŞ tên kuştin***
Polîsê fêdêral ê iraqî daxuyand ku "mufti"yê Dewleta Islamî, Ebdullah Yûnis El-Bedranî, ku bi navê "Ebû Eyyûb" hatiye nasîn, li rojavaya Mûsilê hat kuştin. U.N.ê daxuyand ku 300.000 kes ji vî bajarî reviyane û ku nêzîkî 1.000 xaniyên wî hatin têk dan (xerab kirin). Tora Iraqî ya Mafên Mirov daxuyand ku bitenê di Adar 2017 de, nêzîkî 500 sîvîl hatin kuştin.

Buroya polîsê dizzî yê iraqî daxuyand ku 10 şervanên Dewleta Islamî ji aliyê firokeyên hêzên hevbend, li rojavaya Mûsilê, hatin kuştin. Serokê wan, Salim El-Usman, yê ku navê "Ebû Qehtan" lê hatiye kirin, birîndar bû.

Berdevkê hevbendiya navneteweyî, John Dorrian, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku hîn nêzîkî 1.000 şervanên Dewleta Islamî li Mûsilê hene û ku ew neçar (mecbûr) in ku xwe radest (teslîm) bikin, eger na, ewê werin kuştin.
*(rudaw.net, 15 û 18.04.2017)*

***11 gund û bajarokekî Mûsilê tên rizgar kirin***
Mîlîsên şîî yên Heşdî Ş'ebî 11 gundên Mûsilê rizgar kirin. ***Di 25 Nîsan de***, van mîlîsan 40 şervanên Dewleta Islamî kuşti bûn û jimarek ji tunêl û navendên wê têk biri bûn. Û wan bajarokê Hezerê, li başûrê Mûsilê, jî rizgar kir.
*(rudaw.net, 26 û 27.04.2017)*

***122.137 kes vegeriyane malên xwe***
Wezîrê iraqî yê koçbûnê, Derbaz Muhammed, daxuyand ku jimara penaberên ku li kampên başûr û rojhilata bajarê Mûsilê bûn û ku vegeriyane malên xwe gihajt 122.137.

Li gora buroya U.N.ê li Iraqê, heta 20 Nîsan 2017, jimara penaberên navçeya Nînewa gihajt 503.000.
*(rudaw.net, 24.04.2017)*

***Hin penaber diçin Reqqa, li Sûriyê***
Hin penaberên Mûsilê çûn parêzgeha Reqqa, li Sûriyê. Şervanên kurd ên "HSD" ew li dibistanan bi cî dikin. Penaberên Sûriye û Iraqê bi hev re li gundê Mehmûd dijîn.
*(rudaw.net, 14.04.2017)*

***Ciyekî dîrokî tê rizgar kirin***
Piştî 3 rojên şerr, hêzên ewlehiyê yên iraqî ciyê dîrokî yê Hezerê, li başûrê bajarê Mûsilê, ji Dewleta Islamî rizgar kir. Ev şûnwar ji çend hezar sal berê Zayîna Îsa de heye û di lîsteya şûnwarên dîrokî yên UNESCO de ye.
*(rudaw.net, 27.04.2017)*

***14 polîs tên kuştin û 20 birîndar kirin. 17 DAIŞ tên kuştin***
Dewleta Islamî 6 êrîşên xwekuj pêk anîn. 14 polîs hatin kuştin û 20 birîndar bûn. DAIŞê 2 avahiyên polîs stendin. Lê, piştre, ev her du avahî hatin rizgar kirin û 17 şervanên Dewleta Islamî hatin kuştin.
*(rudaw.net, 29.04.2017)*

## *SELAHEDDÎN*

***2 DAIŞ tên kuştin***
Li Başûrê parêzgeha Selaheddînê, şervanên şîî yên Heşdî Şe'bî 2 endamên Dewleta Islamî kuştin.
*(rudaw.net, 29.04.2017)*

## *BAŞÛRÊ IRAQÊ*

***40 DAIŞ li Samerra tên kuştin***
40 şervanên Dewleta Islamî li bajarokê Samerra hatin kuştin. Wan dixwest ku tê de êrîşeke têrrorîst bikin.
*(rudaw.net, 03.04.2017)*

## 58.000 SERBAZ LI KURDISTANÊ

Li Kurdistanê 58.000 çekdar, ku ji wan 42.000 Pêşmerge, 4.000 şervanên êzdî "Êzîdxan", 2.000 şervanên ereb ên firqeya Cezîrê, yên bajarokên Rebîe û Zûmarê, 10.000 Pêşmerge li Şingalê, hene.
*(rudaw.net, 03.04.2017)*

## ALA KURDÎ LI KERKÛKÊ (dûmahîk)

Di 28 Adar 2017 de, Parêzgeha Kerkûkê bilindkirina ala kurdî li ser hemî zasendeyên (ciyên resmî, muessese) vê parêzgehê xwesti bû (li bultena me ya berê, N° 144, binêre).

Tirkmen, Fille û Erebên Kerkûkê ala kurdî li taxa Arefê, li Kerkûkê, bilind kir. Wan got ku hêzên Pêşmerge ew ji Dewleta Islamî rizgar kirin.

Lê serokê hêzên şîî yên iraqî, Emmar El-Hekîm, li konfêranseke çapemeniyê li Diyala, li dijî vê yekê derket. Berê çend rojan, serokekî din ê van hêzên şîî jî xwesti bû ku buceya Kerkûkê were birrîn.

Serokê parlementa iraqî avakirina encumenekê li ser vê yekê xwest.

***Di 05 Nîsan de***, şandeke hevbeş a politburoyên her du partiyên kurdî, YNK û PDK, bi hogiriya serokê buroya serokatiya Herêma Kurdistanê, çû Bexdadê.

Parlementerên iraqî dest bi berhevkirina wajoyan (imza), ji bo xwestina dûrxistina parêzgarê (walî) Kerkûkê, Necmeddîn Kerîm, kir.
*(rudaw.net, 02, 05 û 10.04.2017)*

**BÎRANÎNA ŞIFA GERDÎ**
Bi hinceta (munasebet) 40 rojiya wefata rojnamevana kurd Şîfa Gerdî, ku ji aliyê Dewleta Islamî li Mûsilê, di 25.02.2017 de, hati bû kuştin (li bultena me ya buhurî binêre), merasîmeke mezzin li Hewlêrê, bi amadebûna serokwezîr û berpirsiyarên bilind ên ramyariyî (siyasî) û leşkerî yên Kurdistanê, hat pêk anîn.
*(rudaw.net, 05.04.2017)*

**RÊFÊRANDUM LI SER SERXWEBÛNÊ**
Rêfêrandumek li ser serxwebûna Kurdistana Iraqê di 2017 de tê pêşbînî kirin. Ji bo vê yekê, şandeke hevbeş a her du partiyên sereke, PDK (Partî Dêmokratî Kurdistana) û YNK (Yekîtî Niştimanî Kurdistan), rastî rêxistinên Tirkmen û Filleyan, ku ev serxwebûn pejirand (qebûl kir), hat.

***Di 09 Nîsan 2017 de***, piştî van rasthatinan, her du partî konfêranseke çapemeniyê li ser vê yekê pêk anî.
*(rudaw.net, 10.04.2017)*

**BÎRANÎNA NIJADKUJIYA KURDÎ**
***Di 14 Nîsan 2017 de***, li gundê Dêbnê, li navçeya Germiyanê, parêzgeha Suleymaniyê, merasîmeke bîranîna nijadkujiya ku ji aliyê diktator Saddam Huseyn, di salên 1986 û 1989 de, ya bi navê "Enfal", hati bû kirin, bû. Ev yek, bi amadebûna berpirsiyarên hukûmî û ramyariyî (siyasî).

Merasîmeke din li nêzîkî monumenta Şehîdên Enfalê, li gundê Topzawa, li başûrê Kerkûkê, hat kirin. Mezzintirîn zîndanên Saddam Husyn li wê derê bû. Bi hezaran Kurd tê de sax hati bûn gor kirin û gelek kes ji sedema êşkence û birçûbûnê miri bûn. Piştî hatina Dewleta Islamî, Pêşmerge ev gund û ev zîndan stendin. Fermandarê wan, Muhammed Qeytûlî, ku yek ji malbatên "Enfal" e, 2 pirtûk li ser vê babetê nivîsîn. Malbatên şehîdan xwest ku berpirsiyarên vê nijadkujiyê werin ceza kirin.

Ev nijadkujiya bi navê "Enfal" di 8 qonaxan (merhele) de hat kirin. Lê, berê wê, di 1983 de, 8.000 endamên êla (eşîr) Berzanî û bi deh hezaran Kurdên feylî (şîî) hati bûn kuştin.

Di dema şerrê îranî-iraqî de, Saddam Huseyn biryara ragirtin û kuştina zilamên kurd ên ji 13 heta 70 salî stendi bû. Navê vê nijadkujiyê "Enfal" hati bû kirin. Bi tevayî, 182.000 Kurd hatin kuştin yan hunda bûn. 4.665 gundên Kurdistanê hatin têk dan. 3.000 mizgeft, 2.000 dibistan û 27 dêr hatin têk birin. Milyonek kes reviyan.

Piştî ketina rejîma partiya Baas, gelek gorên hevbeş li tevahiya Iraqê hatin dîtin.

Parlementa Kurdistanê 14 Nîsan Roja Bîranîna Enfala Reş daxuyand.
*(rudaw.net, 14.04.2017)*

**BÎRANÎNA NIJADKUJIYA ERMENÎ**
***24 Nîsan*** roja navneteweyî ya Bîranîna Nijadkujiya Ermenî, ku berê 102 salan ji aliyê Imperatoriya Osmanî hati bû kirin, e.

Li Kurdistana Iraqê, li bajarokê Zaxo, ev nijadkujî ji aliyê Ermeniyên Kurdistana Iraqê hat bi bîr anîn. Nimînendeyê (temsîlcî) wan li parêzgeha Duhokê, Îşxan Melko, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku jimara Ermeniyên Kurdistana Iraqê gelek piçûk e, lê ku mafên wan tê de hatin parastin û ku nimînendeyekî wan li parlementê û yekî din li encumena parêzgariyî ya Duhokê hene.

Ermeniyên Kurdistana Iraqê dibistanên wan ên bi zimanê ermenî hene û tu cihêtî (ferq) di navbera wan û civatên din de, ne ji aliyê olî û ne jî neteweyî, nîn ne. Birêvebirê Dibistana Ermenî li Zaxo, Fehmî Ehmed, daxuyand ku Ermenî û misilman bi hev re dixwînin. Misilman islamê û Ermenî jî filletiyê dixwînin.

Dr. Hogir Muhammed, Kurdkî ku doktora xwe li ser Ermeniyan kiriye, dilniya (te'kîd) kir ku di dema nijadkujiya ermenî di navbera 1915 û 1918 de, milyonek û nîv Ermenî bûn penaber û ku beşek ji wan hat Kurdistana Iraqê û bajarokê Zaxo. Ew ji Erzurum, Bedlîs, Wan û Mûşê, Kurdistana Tirkiyê, reviyan. Hin ji wan çûn çolên sûrî û urdunî û hin jî Iraqê.

Ermeniyên Zaxo ortodoks in. Nêzîkî 200 malbat li taxa Kêstê dijîn.
*(rudaw.net, 29.04.2017)*

**SEREDANÊN KURDISTANÊ**

***Kurdên Yekîtiya Sovyêtî ya Berê***
***Di 10 Nîsan 2017 de***, serok Mesûd Berzanî pêşwaziya şandeke Fêdêrasyona Rêxistinên Kurdên Yekîtiya Sovyêtî ya Berê kir.

Piştî axaftina li ser rola ku bavê Mesûd, Melle Mustafa Berzanî, di têko şîna Kurdistanê de lîzti bû, û piştî pesndayîna Pêşmergeyên ku bi mêrxasî li dijî Dewleta Islamî şerr dikin, şandê rewşa Kurdên Yekîtiya Sovyêtî ya Berê ravekir. Berzanî pesna rêxistinên kurdî yên van welatan, ku nasname û çanda kurdî diparêzin, da. Li dawiyê, ew li ser dîroka pêwendiyên Kurdistanê bi Iraqê re û rêferanduma li ser serxwebûnê peyivî.
*(rudaw, net. 10.04.2017)*

***Wezîrê iraqî yê parastinê***
***Di 29 Nîsan de***, serok Mesûd Berzanî pêşwaziya wezîrê iraqî yê parastinê, Irfan El-Heyalî, û fermandarê hêzên ezamanî yên iraqî, Enwer Hemed Emîn, kir. Bi Berzanî re wezîrê hundir û cîgirê wezîrê Pêşmerge, Kerîm Şingalî, hebû. Şandê ji Berzanî re agahdarî li ser rewşa nuha ya eniyên şerrê li dijî Dewleta Islamî û ya Mûsilê dan. Her du aliyan rewşa navçeyê û pêşeroja Mûsilê giftûgo kirin û hemahengiya di navbera Pêşmerge û leşkerê iraqî de, di tevgera Mûsilê de, baş nirxand.
*(rudaw.net, 29.04.2017)*

**BEXDAD HATINA "KARGO"YAN KURDISTANÊ QEDEXE DIKE**
Birêvebirê firokexaneya navneteweyî ya Hewlêrê, Telar Fayiq, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku wezareta iraqî ya veguhastinê (transport) biryar stend ku ji derveyî (ji xeynî) firokeyên Bexdadê, tu firokeyeke din a veguhastina kelepûran (cargo) nikare li firokexaneyên din ên iraqê, yên Hewlêr û Suleymaniyê jî tê de, dakeve. Divê ku ew berê li Bexdadê, ji bo çavdêriyê (kontrol), dakevin. Ev yek, bê ku tu ravekirinekê (tefsîr) bide.

Telar Fayiq got jî ku ev biryar ramyariyî (siyasî) ye û ku ew li tu welatekî din ê cihanê nayê kirin.
*(rudaw.net, 26.04.2017)*

# KURDISTANA ÎRANÊ

***Rêjeya xwekuştinê bilind dibe***
Ji sedema pirsên aborî û fişarên (tezyîq) civakî, rêjeya (nisbet) xwekuştinê li Kurdistana Îranê bilind bûye. Navendên îranî yên fermî jimara wan naweşînin.
*(rudaw.net, 21.04.2017)*

***Zimanê tirkî tê hîn kirin, lê ne zimanê kurdî***
Serokê zaníngeha Urmiyê, Rehîm Hubî Neqî, daxuyand ku ewê di sala 2017-2018 de ziman û wêjeya (edebiyat) tirkî, weka fêreke bijare, werin hîn kirin. Û wî got jî ku nuha pirtûk tên amade kirin. Lê, heta nuha, xwestina hînkirina ziman û wêjeya kurdî hatiye red kirin.

Parêzgeha Urmiyê li Kurdistana Îranê ye. Piraniya rûniştevanên we Kurd in, lê tê de Azerî (Azerbaycaniyên ku bi tirkî dipeyivin) û Asûrî jî hene. Hukûmeta îranî li Tehranê daxwaziya Azeriyan dipejirîne (qebûl dike), lê ya Kurdan nake.

# KURDISTANA SÛRIYÊ

**SÛRIYE ÇEKKÊN KÎMYAYÎ DAVÊJE**
***Di 04 Nîsan 2017 de***, serê sibê, firokeyên hukûmeta sûrî bombeyên ku tê de gazên kîmyayî (sarîn) hene avêtin ser Xan Şeyxûn, li parêzgeha sûrî ya Idlibê, ku li bin çavdêriya (kontrol) dijberiya sûrî ye. Ji kêmasî ve 107 kes hatin kuştin û ji 560 bêtir jî birîndar bûn. Piraniya qurbanan zarok bûn.

Hukûmeta sûrî ev yek inkar kir û pê Tirkiye û Iraq tawanbar kir. Fransa û dijberiya sûrî ji Encumena Ewlehiyê ya U.N.ê xwest ku civîneke lezgîn pêk bîne. Serokê tirk, Recep Tayyıp Erdoğan, li ser vê yekê bi serokê rûs, Vladimir Putin, re peyivî û got ku ev yek lihevkirinên Astana (li Kazaxistanê) dixe bin metirsiyê (tehlike) (li bultenên me yên buhurî binêre).

**AMERÎKA ÊRÎŞÎ SÛRIYÊ DIKE**
***Di 07 Nîsan de***, Amerîka bertek da û bingehên leşkerî yên sûrî li Şerîatê, li nêzîkî bajarê Humsê, ji bingehên xwe yên li Deryayê Sipî, bombe kirin. 6 serbazên sûrî û jimareke sîvîlan hatin kuştin û 14 firokeyên sîxuriyê (casûsî) hatin têk dan. Serokê amerîkî, Donald Trump,

daxuyand ku bi vê bersîvdayînê, welatê wî dixwest ku nehêle ku hukûmeta sûrî çekkên kîmyayî bi kar bîne.

Serokê amerîkî, Donald Trump, got ku wî ferman daye êrîşkirina enbarên sûrî yên çekkan jî, û ku Brîtanya Mezzin, Ostralya û Erebistana Suûdî piştgiriya wî kir.

**AMERÎKA : DIVÊ KU ESED BIÇE**

Berdevkê Saraya Sipî, Sean Spicer, got ku divê ku serokê sûrî Esed biçe. Wî got ku heta Hitler jî çekkên kîmyayî li dijî gelê xwe bi kar ne anîn û ku amanca yekemîn a Amerîka têkbirina Dewleta Islamî ye, lê ku eger Rûsya û welatine din hevkariyê bikin, ewê karibin alîkariya gelê sûrî bikin ku serokekî din hilbijêre.
*(rudaw.net, 12.04.2017)*

**BERTEK LI CIHANÊ**

***Rûsya***

Wezîrê rûs ê karên derve, Sergey Lavrov, daxuyand ku welatê wî hevkariya xwe bi Amerîka re, di nav hevbendiya navneteweyî li dijî Dewleta Islamî, rawestandiye. Wî got ku peyt (isbat) nîn bûn ku hukûmeta sûrî ev çekkên kîmyayî avêtine (Rûsya hevbenda Sûriyê ye. Buroya Kurdî).

***Israîl û Rojava***

Gelek welatan, Israîl, Fransa, Almanya, Yekîtiya Ewropî û NATO di serî de, piştgiriya vê êrîşa amerîkî kir.

***Parlementa Ewropî wezîrekî sûrî vedigerîne***

Hati bû pêşbînî kirin ku konfêransek li ser Sûriyê di 10 Nîsan 2017 de li Parlementa Ewropî were kirin. Lê piştî vê êrîşê, ew hat rakirin. Serokê vê parlementê, Antonio Tajani, ne hişt ku cîgirê wezîrê sûrî yê karên derve, Eymen Sûsan, bikeve nav wê.

***Xwepêşandana Sûriyan li Washingtonê***

Sûriyan li ber Saraya Sipî, li Washingtonê, xwe pêşan da û ji serokê amerîkî Donald Trump xwest ku şaşiyên serokê berê, Barak Obama, dubare neke û serokê sûrî Esed li desthilatê nehêle.

***Îran Amerîka rexne dike***

Di daxuyaniyekê de, berdevkê wezareta îranî ya karên derve, Behram Qasimî, got ku Komara Islamî ya Îranê di heman demê de êrîşên Sûriyê û yên Amerîka şermezar dike.

***Kurdistana Iraqê, PYD, hukûmeta iraqî û penaberên sûrî***

Kurdistana Iraqê bi awakî fermî piştgiriya xwe ji êrîşên Amerîka re daxuyand. Partiya Kurdistana Sûriyê, PYD, hukûmeta iraqî û penaberên sûrî li Tirkiyê xwediyên heman (eynî) helwestê bûn.

***Mîlîsên şîî yên Iraqê***

Mîlîsên şîî yên Muqteda El-Sadr got ku rola Amerîka li navçeyê *"neyênî"* (négatif) e. Û wan bangî serokê sûrî Beşşar El-Esed kir ku desthilatê berde.
*(rudaw.net, 04, 07 û 08.04.2017)*

***Fransa***

***Di 26 Nîsan de***, wezîrê fransî yê karên derve, Jean-Marc Ayrault, li konfêranseke çapemeniyê got ku divê ku hukûmeta sûrî derkeve ber Dadgeha Navneteweyî û ku Fransa li ser vê babetê bi hêzên hevbend re giftûgoyan dike.
*(rudaw.net, 26.04.2017)*

***Brîtanya Mezzin***

***Di 27 Nîsan de***, wezîrê brîtanî yê karên derve, Boris Jonson, ji Radio 4, a BBC, re daxuyand ku ew piştgiriya êrîşên ezmanî yên Amerîka dike û ku ew hêvî dike ku serokwezîra brîtanî jî heman tiştî bike. Serokê Partiya Karkeran, Jeremy Corbin, ji vê daxuyaniyê ne dilxweş bû.
*(rudaw.net, 27.04.2017)*

**TIRKIYE KURDISTANÊ BOMBE DIKE**

***Kurd çavdêriya 65% ji sînor dikin***

Ajansa tirkî AA daxuyand ku PYD (partiya Kurdistana Sûriyê, ku nêzîkî PKKê ye) çavdêriya (kontrol) 38.500 km2, ango 21% ji axa sûrî (Kurdistana Sûriyê) û 65% ji sînorê di navbera Sûriye û Tirkiyê de dike.

Piştî dawiya tevgera Mertala Firatê (li bultenên me yên buhurî binêre), wezareta tirkî ya karên derve daxuyand ku ewê leşkerê tirkî xwe ji bakurê Sûriyê nekişîne û rahênana (tedrîb) hêzên dijberiya sûrî bike.
*(rudaw.net, 02.04.2017)*

***Firokeyên tirkî Kurdistanê bombe dikin***

***Di 25 Nîsan 2017 de***, di demjimêr 2 ya serê sibê de, firokeyên tirkî bingehên partiya kurdî YPG, ku nêzîkî PKKê ye, li bajarokê Qereçoxê, yê girêdayî Dêrikê, li Kurdistana Sûriyê, bombe kirin. Çend kuştî û birîndar bûn.

Di heman mêjû û demjimêrê de, vî leşkerî bingehên YPG li çiyayê Şingalê, navçeya Kurdên Êzdî li Kurdistana Iraqê, bombe kirin (li jor binêre).

Li gora mêdyayên nêzîkî YPG, Tirkiyê bajarokên Şêra û Reco, yên girêdayî Efrînê, bombe kirin. Tu qurban ne bûn. YPG bersîv da. Bi ser de jî, Tirkiyê hêzên dijbe-

riya sûrî li navçeya Şehba, di navbera Kobanî û Efrînê de, bombe kirin.
*(rudaw.net, 25 û 26.04.2017)*

***Banga PYD û xwepêşandan***
Hevserokê partiya kurdî PYD, Salih Muslim, bangî hevbendiya navneteweyî kir ku li dijî êrîşên Tirkiyê li ser Kurdistana Sûriyê û Iraqê (Şingal) raweste.

Li bajarên cihê yên Kurdistana Sûriyê, xwepêşandan bi birevebiriya YPG hatin kirin.
*(rudaw.net, 25 û 28.04.2017)*

***Daxuyaniya Amerîka***
***Di 26 Nîsan de***, li konfêranseke çapemeniyê, berdevkê wezareta amerîkî ya karên derve, Mark Toner, daxuyand ku bombekirinên firokeyên tirkî 8 km li nêzîkî bingehên leşkerî yên amerîkî bûn.
*(rudaw.net, 26.04.2017)*

**CIVÎNA RÛSYA, ÎRAN Û TIRKIYÊ**
***Di 18 û 19 Nîsan 2017 de***, li Tehranê civîneke şandên Rûsya, Îran û Tirkiyê, li ser agirbirrînê li Sûriyê û veguhastina girtiyan, bû. Ev yek, bi amadebûna şandên UNê. 2 hefte şûn de, ewê civîneke din li Astana, li Kazaxistanê, bibe.
*(rudaw.net, 20.04.2017)*

**TANKÊN AMERÎKÎ LI KURDISTANÊ**
***Di 29 Nîsan 2017 de***, tankên amerîkî li dirêjayiya sînorê Kurdistana Sûriyê bi Tirkiyê re di rê de çûn, ji bo parastina Kurdên Sûriyê ji êrîşên Tirkiyê. Partiyên ramyariyî (siyasî) yên kurdî piştgiriya vê tevgerê kir.
*(rudaw.net, 30.04.2017)*

**DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ**

***TABQA***

***Di 02 Nîsan 2017 de***, Dewleta Islamî êrîşî firokexaneya Tabqa, bi erebeyeke bombekirî, kir. Hêzên Sûriya Dêmokratîk "HSD", ku partiya kurdî PYD tê de xurttirîn e, şerrê wê kir. Şervanekî HSD birîndar bû.

***Di 15 Nîsan de***, HSD ketin nav bajarê Tabqa. Ew tê de şerrê li dijî Dewleta Islamî, bi piştgiriya firokeyên hêzên hevbend, dajon (dewam dikin). 10 DAIŞ û 2 HSD hatin kuştin. Kargeheke (fabrîka) çekkên Dewleta Islamî hat stendin û 140 Kurdên êzdî, ku ji wan zarok û jin, hatin rizgar kirin.

***Di 30 Nîsan de***, HSD 6 taxên din ên Tabqa stendin. Ji kêmasî ve 14 şervanên Dewleta Islamî hatin kuştin.
*(rudaw.net, 04, 11, 21 û 30.04.2017)*

***REQQA***

***DAIŞ sîvîlan bi kar tîne***
Di şerrê xwe li dijî HSD de, Dewleta Islamî sîvîlan weka mertalên mirovî bi kar tîne. Fermandarên wê hin ji wan, li hemberî dayîna ji 500 heta 1000 dolaran, azad dike.
*(rudaw.net, 04.04.2017)*

***DAIŞ şervanên xwe yên biyanî dikuje!***
Çavkaniyeke HSD (Hêzên Sûriya Dêmokratique) daxuyand ku piştî dorpêçkirina Dewleta Islamî ji 3 aliyan, li Reqqayê, wê dest bi kuştina fermandarên xwe yên biyanî, "emîr", kir. Piraniya wan ji Tûnis, Marokko (Mexrib) û welatên din hatine. Yek ji fermandarên HSD got ku Dewleta Islamî ber bi belavbûnê ye.
*(rudaw.net, 24.04.2017)*

***Encumeneke sîvîl li Reqqa***
Berdevkê Hêzên Sûriya Dêmokratîk "HSD" daxuyand ku Encumeneke Sîvîl a Reqqayê hat pêk anîn û ku piştî rizgarkirina vî bajarî, ewê ev encumen wî bi rê ve bibe.
*(rudaw.net, 19.04.2017)*

***Vegera penaberan Efrînê***



Ji 1.200 penaber bêtir ji navçeyên Şehba, Ebû Kemal, Tudmur û Reqqa ber bi Efrînê reviyan. Hin ji wan li du kampên Rûbar û Şehba, li bajarokê Şêrawa, hatin bi cî kirin.
*(rudaw.net, 09.04.2017)*

**PENABERÊN KURD LI SÎNORÊ CEZAYIR Û MEXRIBÊ**
Jimarek ji malbatên Kurdistana Sûriyê, ku ji wan jin û zarok, xwest ku ji Cezayir û Mexribê derbas bibin û koç bibin Ispanya. Lê, ew li wê derê çikkiyane û bangî rêxistinên mafên mirov dikin ku werin hawara wan.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 23.04.2017)*

**BINGEHÊN LEŞKERÎ YÊN AMERÎKÎ Û RÛSÎ**
Amerîka bingehên wê yên leşkerî li Kurdistana Sûriyê hene: Rimêlan, Kobanî, Eyn Îsa, Munbic. Û bingehên

amerîkî û rûsî li ciyên cihê yên beşa erebî ya Sûriyê jî hene.
*(rudaw.net, 10.04.2017)*

**"YPG" 15 SERBAZÊN SÛRÎ RADIGIRIN**
Çavkaniyeke hukûmeta sûrî daxuyand ku piştî nelihevkirinên di navbera leşkerê sûrî û hêzên kurdî yên "YPG" de, evên dawîn 15 serbazên (esker) sûrî li ser riya di navbera Qamişlî û Hesîçê de ragirtin. Pevçûn di navbera her du aliyan de li gundê Xirbê Emo, li nêzîkî Qamişlî, bûn. Serbazekî sûrî hat kuştin û 3 jî birîndar bûn.
*(rudaw.net, 12.04.2017)*

**REJÎMA SÛRÎ MÎLÎSEKE ŞÎÎ AVA DIKE**
Hukûmeta sûrî li Hesîçê û Qamişlî mîlîseke şîî ya erebî, ya Heşdî Şe'bî, ava kir. Ew ji 500 şervanan pêk hatiye.
*(avestakurd.net, 21.04.2017)*

**"PKK" NAVÊ "KURDISTAN" NAXWAZE**
Yek ji birêvebirên PKKê, Cemil Bayık, daxuyand ku divê ku pergaleke (système) fêdêral, bê bingeheke neteweyî, li Sûriyê bi cî bibe û ku divê ku navê Kurdistana Sûriyê bibe "Bakurê Sûriyê", ji bo ku ne bitenê Kurd li vê navçeyê dijîn (Fille, Tirkmen …).
*(rudaw.net, 13.04.2017)*

**"PYD" LI DIJÎ KURDÊN DIN**

***Qamişlî***
Asayişê, servîsên ewlehiyê yên PYD, ket nav mala Fuad Elîko, endamê polîtburoya partiya kurdî Yekîtî, dema ku jina wî ya nexweş û kurrê wî tê de bûn. Elîko daxuyand ku PYD navê wî kiriye "xayin", ji bo ku ew, tevî dijberiya sûrî, beşdar bû lutkeya (civîna bilind) a Jenêvê li
ser Sûriyê.

Asayişê dest danî ser hebûnên gelek koçber û çalakvanên Kurdistana Sûriyê.
*(avestakurd.net, 16.04.2017)*

***Dêrik***
Di 16 Nîsan 2013 de, 8 efserên (zabit) kurd, ên leşkerê sûrî, jê veqetiya bûn û berê xwe dabû Kurdistana Iraqê. Lê, dema ku ew gihajtin Dêrikê, haya tukesî ji wan ne bû heta nuha çarenivîsa (qeder) wan ne diyar e.

Hin endamên van 8 malbatan dibêjin ku ew ji aliyê hêzên PYD hati bûn ragirtin û birin zîndana Dêrikê. Malbat bang dikin û dixwazin ku çarenivîsa wan zanibin.
*(avestakurd.net, 18.04.2017)*

**ÊRÎŞ LI DIJÎ BERPIRSIYAREKÎ "PDK-S"**
***Di 25 Nîsan de***, bi şev, kesên nenas 4 bombe avêtin mala Ebdul-Rehman Apo, endamê encumena navendî ya Partî Dêmokratî Kurdistana Sûriyê "PDK-S". Bi alîkariya hevsiyan (cîran), şewat hat vemirandin.

Apo got ku amanca vê êrîşê birêvebiriya partiya wî û Encumena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê "ENK-S", ku partiya wî endama wê ye, bû.
*(rudaw.net, 26.04.2017)*

# NÛÇEYÊN NAVNETEWEYÎ

**TIRKIYE**

***20 bijîjkên kurd li konfêransekê li Ankara***
***Di 18 Nîsan 2017 de***, li Ankara Konfêransa Geştiyariya Bijîjkî (tûrîsma tibbî) bû. Ew ji aliyê Rêxistina Tendurustiya Gel a Trabzonê hat pêk anîn û ewê 4 rojan bajo. 20 bijîjk (doktor) ji Kurdistana Iraqê, û hin berpirsiyarên tendurustî û geştiyariyê, beşdarî wê bûn.
*(rudaw.net, 19.04.2017)*

***Nêçîrvan Berzanî li Istanbulê***
Serokwezîrê kurd Nêçîrvan Berzanî çû Istanbulê, ji bo ku beşdar bibe Lutkeya Encumena Atlantîk. Babetên weka ewlehî, abor, qeyrana (krîz) penaberan û kaniyên ênêrjiyê, ku ji wan gaz û ênêrjiya Kurdistanê, hatin giftûgo kirin. Li gora pisporan, kaniyên ênêrjiyê ewê bigihînin guhertinên mezzin ên jêopolîtîk.
Serokê tirk, Recep Tayyıp Erdoğan, tê de êrîşî PKK û YPG kir û got ku mafê Tirkiyê heye ku xwe biparêze.
*(rudaw.net, 28.04.2017)*

**ERMENISTAN**

***Kurdek dibe parlementer***



***Di 02 Nîsan 2017 de***, hilbijartinên parlementerî li Ermenistanê bûn. Ji dema hilweşana Yekîtiya Sovyêtî, ev cara yekemîn e ku Kurdek li parlementa ermenî dibe parlementer. Ew Kinyazê Hemîd, endamê partiya ermenî ya destihilatê, ya Sêrj Sarkîsyan, e.

Kinyazê Hemîd 71 salî ye. Ew ji aliyê, ne bitenê Kurdên Ermenistanê, lê Ermeniyan jî tê nas û hez kirin. Di 1925 de, dema serlhildana Şêx Seîd, li Kurdistana Tirkiyê, malbata wî ji Wanê koç bû bû Ermenistanê.
*(rudaw.net, 04.04.2017)*

**NETEWEYÊN YEKBÛYÎ (UN)**

***Banga alîkariya Sûriyan***
Rawêjkarê (muşawir) şandê taybetî yê U.N.ê li Sûriyê, Jan Egeland, bangî Amerîka, Rûsya, Îran û Tirkiyê kir ku di 72 demjimêran (saet) de agirbirrînek li Sûriyê farz bikin, ji bo ku alîkariya mirovî di Nîsan û Gulanê de bigihêje navçeyên ku tê de şerr heye û ku dorpêçkirî ne. Wî anî bîran ku li bajarokê Xûta, li Rojhilata Şamê, 400.000 kes çikkiyane.
*(rudaw.net, 06.04.2017)*

**HONGARYA**

***Konfêranseke navneteweyî li ser Nijadkujiyan***
***Di 20 Nîsan 2017 de***, li Budapestê Konfêransa Navneteweyî li ser Nijadkujiyan (qetliam) dest pê kir. Di roja 2mîn de, nijadkujiya ermenî ya 1916, û ya kurdî, li Kurdistana Iraqê, ya bi navê "Enfal" û "Halabca", di 1988-1989 de, ku ji aliyê dictator Saddam Huseyn hati bû kirin, û ya Kurdên êzdî li Şingalê, ku ji aliyê Dewleta Isalmî hat kirin, hatin giftûgo kirin.

Serokê Zanîngeha Navneteweyî ya Hewlêrê, li Kurdistana Iraqê, Dr. Muhammed Ihsan, tê de peyivî û got ku di sedsala 20mîn de, piraniya nijadkujiyan li cihanê li Iraqê bûn.

Çalakvan û femînîsta kurd a êzdî, Firmêsk Dawûd Heso, got ku diviya bû ku civata navneteweyî nijadkujiya Kurdên êzdî li Şingalê nas bike. Û wê got jî ku divê ku Êzdî û yên ji olên cihê ji aliyê hêzên navneteweyî bên parastin.

Mamosteyê zanîngehê, Aware Hesen, ji Halabca ye. Ev bajar sembola nijadkujiya kurdî, ku tê de Saddam Huseyn çekkên kîmyayî avêti bûn û di çend xulekan (deqqe) de 5.000 kes kuşti bûn, e. Wî got ku nijadkujiya Halabca hatiye xistin nav pirtûkên dîrokê û beşa yasayê (huqûq) a zanîngeha Halabca.
*(rudaw.net, 21.04.2017)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ LI CIHANÊ

**KURDISTANA IRAQÊ**

***Konsêreke kurdî-yûnanî***
3 hundermendên yûnanî û kurd konsêrek li Suleymaniyê pêşkêş kir. Yek ji Yûnaniyan, Yanî Pûlîs, got ku şareyariyên (medeniyyet) yûnanî û kurdî hevbeş in û ku muzîkên wan nêzîkî hevdu ne.
*(rudaw.net, 04.04.2017)*

***Fêstivala Folklorê***
***Di 10 Nîsan de***, Fêstîvala Folklorîk a Duhokê dest pê kir. 20 kom, ji 4 perçeyên Kurdistanê, beşdarî wê bûn. Ew ji aliyê birêvebiriya çandê ya parêzgeha Duhokê hat pêk anîn.
*(rudaw.net, 10.04.2017)*

***Pêşangeha Navneteweyî ya Pirtûkan***
***Di 15 Nîsan de***, 12mîn Pêşangeha Navneteweyî ya Pirtûkan li Hewlêrê kutah (xelas) bû. Nêzîkî 700.000 pirtûk hatin pêşan dan. Piraniya wan bi ingilîzî û erebî bûn. Ji 300 weşanxane bêtir, ji 18 welatên cihanê, hatin pêşkêş kirin.
*(rudaw.net, 16.04.2017)*

***Roja Navneteweyî ya Mêdyayan***
***Di 20 Nîsan de***, li bajarê Suleymaniyê Roja Navneteweyî ya Mêdyayan bû. Ew ji aliyê Zanîngeha Polîtêknîk a Suleymaniyê hat pêk anîn. 3 panêl tê de bi rê ve çûn. Navê ya 3mîn "Krîza Mêdyayan" bû. Rojnamevan û akadêmîk li ser borana (krîz) mêdyayan li Kurdistanê peyivîn.
*(rudaw.net, 21.04.2017)*

***Keçeke 12 salî li kuçan dans dike***
Keçeke piçûk a 12 salî, Riwan, li kuçeyên Hewlêrê dans dike. Bavê wê, Cewad Mustafa, Pêşmergeyekî kevn e. Ew dibêje ku wî tucar jê re ev yek qedexe ne kir û ku ew dixwaze ku bîrên (fikr) herkesî vekirî bin. Û wî got jî ku Pêşmerge ji bo azadiya Kurdistanê xebitîn û ku

nuha divê ku xizmetkirina wê bi huner, muzîk, şano û sînema bibe.
*(rudaw.net, 22.04.2017)*

***Konfêranseke navneteweyî li ser Piştî Daişê***

***Di 23 Nîsan de***, li zanîngeha Duhokê konfêranseke navneteweyî, bi navê "Kurdistana piştî Dewleta Islamî û pirsa sînoran", li bin patronaja hukûmeta Kurdistanê, bû û ewê 2 rojan bajo. Konfêranskerên Kurdistana Iraqê û navneteweyî tê de peyivîn. Vekirina wê ji aliyê Navenda Beşikçi ji bo Lêgerînên Mirovî hat kirin (bi navê civakzanê tirk ê navdar û hevalê Kurdan, Ismaïl Beşikçi).

Beşikçi 17 sal û 2 meh li zîndanên tirkî, ji sedema nivîsên wî li ser pirsa kurdî, ma bû. Li vê konfêransa Duhokê, wî got ku divê ku Kurd jî ciyê wan di nav malbata neteweyên cihanê de hebe û ku jimara rûniştevanên hin dewletan ji milyonek jî ne bêtir e.
*(rudaw.net, 23 û 24.04.2017)*

***2mîn Fêstivala Folklorîk li Duhokê***

2mîn Fêstivala Folklorîk li zanîngeha Newrozê, li Duhokê, li bin duruşma "Hebûna me di parastina folklor û serxwebûnê ye", bû. Kelepûr (tiştên cihê) û cillên kevn hatin pêşan dan û xwarinên kurdî hatin pêşkêş kirin.
*(rudaw.net, 23.04.2017)*

**KURDISTANA SÛRIYÊ**

***Klîpek ji bo Şîfa Gerdî***

***Di 05 Nîsan de***, koma Serxwebûn klîpek li ser rojnamevana ji Kurdistana Iraqê, Şîfa Gerdî, ku li Mûsilê ji aliyê Dewleta Islamî hat kuştin, çêkir. Ev yek, bi hinceta (munasebet) 40mîn roja wefata wê (li bultena me ya buhurî binêre. Buroya Kurdî).

***Fêrên muzîkê yên kêmendamekî***

Salih Ebdul-Kerîm li Qamişlî dijî. Ji piçûkayiya xwe de, ew kor e û piyên wî felc bûne. Ew li mala xwe fêrên muzîkê dide zarok û cuhanan.
*(rudaw.net, 09.04.2017)*

***Fêstivala Fîlm li Qamişlî***

***Di 17 Nîsan de***, 1mîn Fêstivala Sînema li bajarê Qamişlî, bi navê "Sînema Ayîneya Gelan û Dilê Jiyanê ye", dest pê kir. Ewê di 21 Nîsan de kutah (xelas) bibe. Birêvebirê fêstivalê, Selam Hesen, got ku ewê ev fîlm li hemî bajarên Cezîrê bên pêşan dan.

Ewê êzîkî 32 fîlm tê de bên nîşan dan. Welatên weka Iraq, Tirkiye, Lubnan, Misr û Mexrib, û Ukranya û welatên Amerîka Latînî jî, beşdarî wê bûne. Ewê fîlma navdar "Kaskên Sipî" jî, ku xelata Oskarê ya 2017 de stend, bê nîşan dan.

Di her du salên dawîn de, çend fêstivalên hunerî û wêjeyî (edebî) li Qamişlî hatin pêk anîn. Ji wan, 3mîn Fêstivala Kurteçîrokê, di Hezîran 2017 de.
*(rudaw.net, 19.04.2017)*

**TIRKIYE**

***Fîlmeke kurdî li Fêstivala Istanbulê***




***Di 05 Nîsan de***, 36mîn Fêstivala Fîlm a Istanbulê, ku ji aliyê Weqfa Çand û Hunerê ya Istanbulê (IKSV) hatiye pêk anîn, dest pê kir û ewê heta 15 Nîsan bajo. Fîlmeke kurdî bi navê "Birayên Bêdengiyê", ya fîlmçêker Taylan Mintaş, hat nîşan dan.

Îsal,  ewê 186 fîlm, ku ji wan 61 dirêj û 17 kurt, bên pêşkêş kirin. Xelata Rûmetê ji lîzvan Sir Ian McKellen re hat dayîn.
*(rudaw.net, 05.04.2017)*

**KURDISTANA IRAQ Û SÛRIYÊ**

***Çarşema Sor a Kurdên Êzdî***

***Yekemîn Çarşema Nîsanê (îsal, 5/4),*** li herderê cihanê, mezzintirîn cêjna Kurdên ji ola êzdî ye û navê wê "Çarşema Sor" e. Li gora vê olê, her sal Xwedê Melekek dişîne ser erd, ji bo ku Xerabiyê jê rake û Qenciyê tê de belav bike. Berê rojekê, Kurdên êzdî, yên navçeyên cihê, diçin seredana perestgeha Lalişê û tê de 366 çira vêdixin. Ew dibêjin ku ev cêjna hemî mirovahiyê ye.

Li Kurdistana Iraqê, Mîrê Êzdiyan li cihanê, Mîr Tehsîn Beg, daxuyand ku êzdî, misilman û fille bira ne, ku ew bi hev re dijîn û ku, ji bo vê yekê, ew wan, ji bo cêjnên wan, pîroz dike. Û wî Pêşmerge jî, ji bo şerkirina Dewleta Islamî "Daiş", pîroz kirin.

Li Kurdistana Sûriyê, Êzdiyan cêjna xwe li gundê Qereçoxê, yê girêdayî Amûdê, bi fêstivaleke mezzin pîroz kir. Ew li navçeyên Efrîn û Cezîrê dijîn. Li Kobanî, ew nîn in, ji bo ku piraniya rûniştevanên wê koç bûn Almanya.

Hev-serokê Mala Kurdên Êzdî, Sîdo, got ku li gora baweriyên wan, di wê rojê de melek-tawûs hat ser erd, ku ev roj a qiyametê ye (jîndarbûna piştî mirinê). Sirûşt (tebîet) rengîn dibe û hemî mexlûqat bi hev re jin-mêrtî dikin. Loma, ji bo rûmetkirinê (hurmet), Êzdî di Nîsanê de nazewicin.

Rojek berê cêjnê, Êzdî hêkan dikelînin û reng dikin, şîraniyeke bi navê "kiloç" yan "kulîçe" çêdikin, qurbanan ser jê dikin. Di roja cêjnê de, jin cillên rengîn li xwe dikin û herkes li nav xwezayê (tebîet) xwarin dixwe "pique-nique". _(rudaw.net, 19 û 20.04.2017)_

**KURDISTANA TIRKIYÊ**

***Pêşangeha çandin û xwedîkirina lawiran li Amedê***
***Di 18 Nîsan de***, li Amedê (Diyarbekir) 8mîn Pêşangeha Çandin û Xwedîkirinê li Rojhilata Navîn dest pê kir. Ewê heta 22 Nîsan bajo (dewam bike).

103 şirketên cihî û 218 karsazên biyanî beşdarî wê bûn. Bi ser de jî, şand (délégations) û kesan seredawa wê kir : Şandeke 120 kesan ji Kurdistana Iraqê, nêzîkî 100 karsaz (businessmen) û berpirsiyarên Erebistana Suûdî, Behreyn, Iraq û Îranê, û kesên ji bajarên cihê yên Kurdistana Tirkiyê bi 600 otobusan seredana wê kir. _(rudaw.net, 19.04.2017)_

*Ev bulten bi 4 zimanan, kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî tê weşandin û bi e.mail ji nêzîkî 1.000 navnîşanan re tê şandin. Ew bi kurdî û fransî ji aliyê Pervîn Cemîl hatiye nivîsîn, ji aliyê Jona Mustafa hatiye wergerandin hollandî û ji aliyê Benedikte Von Achen hatiye wergerandin ingilîzî. Montaja wê ji aliyê Pieter û Nevîn Gerits û Jona û Benedikte hatiye kirin. Rênas Newrozî wê li ser CD'yan tomar (qeyd) dike û datîne ser facebook û malpera entêrnêtê, yên Buroya Kurdî, û* http://en.calameo.com/accounts/3601834. *Ew li ser kaxiz jî tê çap kirin û danîn nav pirtûkxaneya Buroyê, ku tê de berhemên bi nêzîkî 10 zimanan hene.*






**Vlaamse Gemeenschapscommisie**